# Ferhenga Avestayî-Kurdî

## Beş 2

**Bêhrûz ŞUCAÎ**

| **avestî** | **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|---|
| pesev | pez | koyun | mouton | sheep |
| entere | hundir, hindir | iç, içeri | interne, intérieur | inner, interior |
| frezentey | ferzende | çocuk, oğul | enfant, fils | child, son |
| eyen | heyam | gün, gündüz | jour | day, daytime |
| avar | arî, alî, hawar | yardım | aide | help |
| erş-date | ... dat(în)- | iyi yapılmış | bien fait | well made, well built (things and people) |
| manah | ra(man), mane | anlam | signification | think, meaning |
| veçeh | bêj-,vaja, bêje | söylemek | dire | to say |
| zə me | zevî | toprak | terre | earth |
| uştre | huştir | deve | chameau | camel |
| ke | kê, kî, kîjan | hangi | qui | who, which |
| kete | key, ke(ke-banî) | oda | chambre | room, small house |
| meseh | mezin | büyük | grand | big |
| kede, keɗe, ket | ke(ngê), key | olduğu zaman | quand | when |
| ken- | kend û kor | kazmak | creuser | to dig |
| keinye, keinî, keinîn | keynik, keç(ik), keynê | kız | fille | young girl, daughter |
| ker-, | kir-, -ki- | yapmak | faire | to do |
| kehrkase | kerkes | karga | vautour | vulture |
| kerət- | ker(î) kirin | kesmek | couper | to cut |
| kerəte | kêr, kêrd | bıçak | couteau | knife, |
| kerəne | kerr | sağır | sourd | deaf |
| keirye | kar | iş, işlev | fonction | function |
| dûme | dûv | kuyruk | queue | tail |
| kerş, kerəşe | kêşan, kişandin | çekmek | tirer, porter | to draw, to carry |
| danev | dane, dene | tohum | graine | seed |
| kame | kam | arzu | désir | desire |
| zreya | zerya, derya | deniz | mer | sea, lake |
| kû | (li) kû | orada | où | where |
| kuda | kûda, kuda ? | nerede? | où ? | where? |
| kve | kude, kuve ? | nereye? | vers où ? | whither |
| gao | ga | öküz | bœuf | ox |
| daye | dayîn, dê | bakmak, ilgilenmek | prendre soin | taking care, (now mother) |
| gaona | gon, gûn | renk | couleur | colour |
| meêze | mîz | idrar | urine | urine |
| zeste | dest | el | main | hand |
| geoş | guh, goş | kulak | oreille | ear |
| geoşvare | guhar | küpe | boucle d'oreille | ear-rings |
| gen-, cen-, ceɡn-, | jen- | vurmak | frapper, battre | to smite, to strike |
| gey, ciɡey, cve-, cvya | jî(iyîn), jiyan | yaşamak | vivre | to live |
| da- | da- | vermek | donner | to give |
| gaveiqye | gavan | çoban | bouvier | herd of cattle |
| gar | gewrî, gerû, | boğaz | gorge | throat, neck |
| gerey-, geiri | gir | tepe | colline | hill |
| gerəz-, gərəz, gərəza, gərəzeête | gaz-, gazinde, gazinc | siten | complainte | a lament |
| gaqa | gazî | şarkı | chant, hymne | song, hymn |
| gamen | gav | adım | pas | step, pace |
| gəne, gəne | jin | kadın | femme | woman |
| xan-, xanye | kan, kanî | çeşme | source, fontaine | source, fountain, spring |
| xreos | xiroş | bağırmak, korkutmak | crier, effrayer | to cry, to frighten |
| xrûnəra | xwîn- | kanlı | ensanglanté | bloody, blood soaked |
| xrûre | xwîn- | kana susamış | assoiffé de sang | blood-thirsty |
| puqre | pis | oğul | fils | son |
| xşeqre- | şah | şah | règne, souverain | reign, dominion, sovereign |
| xşeqrye | şahanî | şahane | royal | royal, kingly, |
| xşep | şev | gece | nuit | night |
| xşaye | şah | şah, kral | prince, roi | sovereign, king, prince |
| xşa(y) | şiyan, eşê, şe (kirin, weşe kirin | yapabilmek | être capable de, maîtriser | to be able to, to master |
| xşnaoqre | xweşnûd | hoşnutluk | satisfaction | satisfaction |
| zan- | zanîn | bilmek | savoir | to know |
| xşveş | şeş | altı | six | six |
| zyam | (ziv)istan | kış | hiver | winter |
| çeqwer-, çetur- | çar, çwar, çiyar | dört | quatre | four |
| çeqru-kerene | çar-kenar | dört köşe | quatre coins | four corners |
| çenre-nhak- | çêre, çêr- | otlak | prairie | grazing |
| çarəmen | çerm | deri | peau | skin, leather |
| çiqa | ceza, siza | ceza | punition | punishment, penalty |
| teoxmen | tov, toxim | tohum | graine | seed |
| tenû | ten | vücut | corps | body |
| tev-, tu-, tûtev, tûtu | twan-în | yapabilmek | être capable | to be able |
| terşne | tî, tenî | susamış | assoiffé | thirsty |
| teş- | teşe | biçim | forme | shape, form |
| teşte | teşt | tabak | assiette, coupe | dish, cup |
| tigrey, tigre | tîr | ok | flèche | arrow |
| tîjî | tîj, tûj | keskin | pointu, acéré | sharp |
| tvəm | tu, te | sen | tu | you, thee/thou (obsolete) |
| deêna | dîn | din | religion | religion |
| deêve- | dêw | şeytan | démon | false god, demon, fiend, devil |
| dag-, deje- | dax | yakmak | brûler | to burn |
| deɗveh-, daduş- | da-ner | yaratıcı | créateur | creator |
| dar- | -dar | tutmak | tenir | to hold, maintain… |
| derəge | drêj | uzun | long | long |
| bazev | bask, bazk, (baz)bend | kol, kanat | bras, aile | arm |
| dese | des, deh | on | dix | ten |
| dese-gaye- | deh-gav | on adım | dix pas | (length of) ten paces |
| desəme | desem, dehem | onuncu | dixième | tenth |
| dehake | dehak | şeytani yaratık | être démoniaque | fiendish being |
| dehyev, dehyu- | dêh (niha gund), dih | toprak | terre | land |
| ejey-dehake | ejdehak, ejderha | Dahak | Az-Dahak, roi démoniaque mythique d'Iran | Azhdehak, mythical fiendish king of Iran |
| da | dan(în) | yaratmak | créer | to create |

| | | | | |
|---|---|---|---|---|
| day | daye, dê | 1) dadı; 2) özenle bakmak | 1) nounou ; 2) élever avec soin | 1) an child's nurse 2) to bring up (a child) carefully |
| day-, dîte- | dît-în | bakmak | voir, regarder | to see, to look at |
| date | dad, dat | doğru, kanun | droit, loi | right, law |
| data | dan, dran, didan | diş | dent | tooth |
| dauru | dar | ağaç | bois | wood |
| dvedese | donzde, dvedese | oniki | douze | twelve |
| ɋwe- | tu | sen | tu | you, thee/thou (obsolete) |
| ɋrey | sê, hirê | üç | trois | three |
| ɋreh-, tərəse-, | tirs | korku | peur, effroi, frayeur | fear, fright, dread |
| ɋri-sete | sê sed | üç yüz | trois cents | three hundred |
| zefen, zefeh- | dev | ağız | bouche | mouth |
| peêse | pîs | cüzzamlı | lépreux | leper |
| pek-, peçe | pat-, peht-, pêj- | pişirmek | cuire | to cook |
| pet-, pete-, peteye-, | peyt, pêt, pît | sıvışmak | sortir en vitesse, filer à l'anglaise | to rush (out), to take French leave |
| perştey | pirs | bilgi, soru | information, question | information, question |
| ped, pad, peðe | pê | ayak | pied | foot, step |
| peɋene | pehn, pan | geniş | large, spacieux | broad, wide, spacious |
| pençe | pênc | beş | cinq | five |
| pençe.dese | panzde | on beş | quinze | fifteen |
| pença-sent- | pêncî | elli | cinquante | fifty |
| perev, peuru, peouru- | pir | çok, birçok | nombreux, abondant, fréquent | many, abundant, often |
| pero | berî, pêr, par | önce | avant | before, foreword |
| peirî | berê, berî, par, pêr | önce, önceden | avant | before, formerly |
| pairî.deêze | parêz | ağıl | enclos | enclosure |
| perəne, pərəne | perr | tüy | plume | feather |
| perşta (from fras-) | pirs | sormak | demander | ask |
| parşte | parast-in | korunmak | protection, garde | cover, protection, wardship, guard |
| pesçe | paş | arka | derrière | behind |
| pezdeye | bizd-în | korkutmak | effrayer | to scare, to frighten, |
| pa(y)-, paye-, papey-, pah- | pa-yîn | beklemek | attendre, garder | to expect, to guard |
| paşne | pehnî, panî | topuk | talon | heel |
| pərətev | pird, pire, pir | köprü | pont | bridge |
| pərəɋev | freh | geniş | large | wide, broad |
| einike | enî | alın | front | front |
| pərəne | pirr, purr(di klasîkan de) | dolu | plein | full |
| pərəseiti | pirs-în | sormak | demander | ask |
| sare | ser, serî | baş, kafa | tête | head |
| pourucîre | pir-jîr | zeki | intelligent, doué | intelligent, gifted |
| mehrke- | merg | ölü | mort | dead |
| sete | sed | yüz | cent | hundred |
| hezenre- | hezar | bin | mille | thousand |
| pasto-, peste- | post, pîst | post | peau | skin, hairy skin |
| piter, piɋr-, | pî (dimilî) | baba | père | father |
| beod, beoðe-, baoda-, | bîhn, bihîst(in) | fark etmek, kokusunu almak | sentir, percevoir | to perceive, to feel smell of |
| beoðey (beod) | bîhn, bîn | koku | parfum | perfume, sweet scent |
| beoðeh- | bihîst- | algılama | perception | perception, consciousness |
| bege | beg | malık, tanrı | seigneur, Dieu | lord, god |
| bend-, bendeye-, beste- | bend-, best-in | bağlamak | relier, coller | to bind, glue |
| bu-, bv-, bûte | bû(n) | olimak | être | to be |
| ber-, bere-, bareye- | bir, bar | taşımak | porter | carry, bear |
| mahye- | meh | ay | mois | month |
| bûne | bin | alt | fond, dessous | bottom, underneath |
| espe | hesp | at | cheval | horse |
| sraoɋra, srûtey | sirûd | ezgi, dua | chant, prière | a chant , prayer |
| dûreţ | dûr | uzak | loin, éloigné | far, far off, far away |
| fştane | bistan | kadın göğsü | poitrine de femme | woman's breast |
| ne | na, ne | değıl | ne… pas | not |
| neê-çe | ne-jî | ve de | non plus | neither |
| neême- | nîv, nîm | yarı | moitié | half |
| neve- | neh, noh | dokuz | neuf | nine |
| nepat, nept, nepter, naptî | nevî, nebî | torun | petit-fils | grandson/daughter |
| neptye | nevîtî | züriyet | descendant | descendant |
| neve | nû | yeni | nouveau, frais | new, fresh |
| nes-, nese, nase, naş | nêz, nêzîk | yaklaşmak, ulaşınak | approcher, atteindre | to approach, to come near, to reach |

# Paşgirên kurdî

# - I -

**Amadekar : Reşo ZÎLAN**

Paşgir, ango paşdanî yan jî paşpirtik, ew peyvên pir kurt in ku bi dawîya peyvên xwedîmane yên sade yan jî hevedudanî ve tên girê dan û bi vî rengî maneyeke nû didin peyva ku nû hatîye afirandinê. Eger peyva berî paşgirê sade be, êdî ev peyva nûafirandî ya bi alîkarîya pirtikan dibe peyveke hevedudanî.

Heke em vê bi nimûneya peyva ″**tirsonek**″ ve binimînin, em dibînin ku ev peyveke hevedudanî ye û ji du beşan pêk hatîye, ″**tirs**″ û ″**onek**″. Beşa pêşîn, ku ″**tirs**″ e, xwedîmane ye. Peyveke ne hevedudanî ye, sade ye û em dizanin ku ew ji alîyê maneyê ve rewş û haleteke ruhî nîşan dide. Beşa didwan ya vê peyvê ″**onek**″ e, ku ne xwedîmane ye. Bi tena serê xwe hîç maneyekê nade. Lê gava ku ew bi beşa yekê ve tête girêdan, peyveke nû diafirîne, dibe ″**tirsonek**″. Hingê peyva nûafirandî dibe peyveke hevedudanî. Ev peyva nûafirandî, çendî ji alîyê maneyê ve bi peyva pêşîn ve peywendîdar be jî, êdî xwedîmaneyeke nû ye û ji me re rewşa ruhî ya kesekî salox dide.

Di peyveke weha de, em ji vê beşa didwan, ku ″**onek**″ e, paşgir dibêjin. Ev bi tena serê xwe ne xwedîmane ye û em bi misogerî nizanin ji çi peyvê hatîye û ketîye vî rengî. Li milekî din, paşgireke holê çu caran jî bi tena serê xwe nahête bi kar anîn. Ji ber vê yekê jî, divê bi dawîya peyvekê ve bête nûsandin (zeliqandin), ku jê maneyeke din biafirîne. Em vê rewşê di peyvên wek; zirtonek, bizdonek, fitlonek, zivronek / zîvronek û hwd de xweş dibînin.

Lê carina hin peyv hene ku em dizanin paşgira wan ji çi afirîne. Bo nimûne, peyva ″**masîgir**″, ango mirovê ku masîyan digire, bi karê girtina masîyan radibe. Em dibînin ku ev peyv ji beşên ″**masî**″ û ″**gir**″ hevedudanî ye. Beşa pêşîn, ku ″**masî**″ ye, navê malbateke heywanan e ku di avê de dijîn. Beşa didwan, ku ″**gir**″ e, di rewşeke bi tena

serê xwe de dikare jê sê maneyên jihevdûr derkevin. Ya yekemîn, ″**gir**″ di maneya ″*girik, çîyakok, tepe, til*″ de ye. Ya didwan, di maneya ″**mezin**″ de ye. Heçî maneya sisyan e, ji lêkera ″*girtin*″ê ye. Qurma wê ya dema niha ye; ez di**gir**im, tu di**girî**, ew di**gir**e, em / hûn / ew di**gir**in. Ne xwe, di peyva ″**masîgir**″ de, qet herdu maneyên pêşîn yên ″**gir**″ê tune ye. Lê, maneya wê ya sisyan tê de heye. Li vir êdî ew perçeyek yan jî pirtikek e ji peyvekê. Ew wek pirtik, herçendî zû yan jî dereng peyva ″*girtin*″ê bîhîne bîra mirov jî, bi tena serê xwe ne xwedîmane ye. Bi tena serê xwe jî ne bi kar têt û ne jî têtе nivîsandin.

Di kurdî de, kîjan zarava dibe bila bibe, paşgirên heyî yan ji qurmên lêkeran yan jî ji parçepeyvên ku îro êdî bûne pirtik pêk tên. Piranîya van paşgiran bi tena serê xwe nahên bi kar anîn. Lê hindek ji wan hene, ku îro di gel rola xwe ya paşgirê wek peyveke serbixwe jî tênе bi kar anîn; wek -kar, -bend, -xane û hwd. Di vê lîsteyê de me behsa çendek ji wan jî kiriye.

Di afirandina peyvên nû yên ji paşgiran hevedudanî de divê mirov berî her tiştî bala xwe bide nimûneyên ji berê de di zimanê kurdî de heyî. Li gor naveroka wê, xwe ji maneyên wê yên dîrokî bi dûr neêxe û bi vî awayî peyva nû li hev siwar bike.

Herçendî me ji bo peyva paşgirê, ku di zimanên ewropî de jê re *suffix* dibêjin, berê "paşdanî" gotibe jî, piştî gotûbêjeke dûr û dirêj, me baştir dît ku em di şûna wê de peyva *paşgir* bi kar bînin. Di termînolijîya zimannasîyê de mefhûma paşgir çêtir mane dide û ji bo wergerandina mefhûmên din yên babetên cînar hêsanîyekê pêşkêş dike.

Em ê li vê jêrê lîsteyeke alfabetîk ya ji paşgirên di zaravayê kurmancî de heyî berpêş bikin û hewil bidin da ku bi kurtî rol û maneya wan ya fonksîyonel salox bidin.

**-a** (I) : Ev paşgir têtе dawîya hin qurmên lêkaran, yên dema niha yan jî borî, da ku merama ji lêkerê bide naveroka peyvê.
Nimûne: zan**a**, bez**a**, bîn**a**, nebîn**a**, fehm**a**, xwend**a**, xur**a** / xure (xwera / xwere)

**-a** (II) : Têtе dawîya hin rengdêran û wan dike navdêr.
Nimûne: germ**a**, serm**a**

**-a** (III) : Ji rengdêrekê rengdêreke nû diafirîne.
Nimûne: xam**a**

**-ahî / -ayî / -hî / -yî** : Bi alîkarîya vê paşgirê navdêrên abstrakt tên çêkirin. Peyv eger bi tîpeke dengdar xelas be (-**a**)ya wê dikeve û dibe (-**hî** / -**yî**). Lê eger peyv bi tîpeke bêdeng dawî bêt, hingê (-a)ya vê paşgirê nakeve. Di devokên kurmancî de du formên vê paşgirê hene: 1. -**ahî**, 2. -**ayî**. Heçî kurdîya kurmancî ya nivîskî ye, rastnivîsa wê li ser bingeha klasîkên me, ku wê jî li ser bingeha devoka botî bejin daye, qanûnek daye ber xwe. Ji ber vê yekê ye, ku forma serekî ya vê paşgirê (-**ahî**) ye.
Nimûne: dûr**ahî**, bilind**ahî**, mezin**ahî**, ber**ahî**, dirêj**ahî**, germ**ahî**, bîn**ahî**, piçûk**ahî**, sor**ahî**, reş**ahî**, zer**ahî**, kesk**ahî**, hêşîn**ahî**, ter**ahî**, şil**ahî**, kûr**ahî**, ava**hî** / avayî, şa**hî** / yî, şên**ahî**, şîn**ahî**, ron**ahî**, kor**ahî**

**-ajo** : Paşgira ji lêkera ″ajotin″ê ye û maneya ″kesê / tiştê ku bi karê ajotinê radibe″ dide peyvê.
Nimûne: ker**ajo**, ga**ajo**, dû**ajo**

**-ak** : Ji rengdêrekê rengdêreke nû diafirîne.
Nimûne: ron**ak**,

**-al** : Bi alîkarîya vê paşgirê navdêr tênе çêkirin.
Nimûne: hev**al**, kort**al**, teng**al**, kend**al**

**-alês** : Paşgira ji lêkera ″alastin, alistin″ê ye û maneya ″kesê / tiştê ku bi karê alastinê radibe″ dide peyvê.
Nimûne: qûn**alês**, sol**alês**, kod**alês**, kas**alês** (kasealês), firaq**alês**

**-an /-yan** (I) : Nîşana piranîyê ye. Piranîya forma nebinavkirî ye û têtе dawîya navdêrên hem mê û hem jî nêr.
Nimûne: kofîya jin**an**, kumê mêr**an**, erdê gundî**yan**, welatê kurd**an**

**-an /-yan** (II) : Wek nîşana piranîyê navê êl û eşîretekê dide xuya kirin.
Nimûne: heyder**an**, demen**an**, kîk**an**, mil**an**, reşkot**an**, celalî**yan**, gawestî**yan**, Goyî**yan**

**-an /-yan** (III) : Navê herêmekê ku êl û eşîreta navkirî lê dijî yan jî lê dima nîşan dide.
Nimûne: Bot**an**, Sor**an**, Mukrî**yan**, Behdîn**an**

**-an /-yan** (IV) : Wek nîşana piranîyê ji navdêran navdêreke nû û xwedan maneyeke nû diafirîne.
Nimûne: gul**an**, xal**an**, ap**an**

**-ane** (I) : Paşgirek e ku pê hoker tênе çêkirin û maneya "bi awayê, bi rengê, bi tehrê, bi şiklê" dide peyvê.
Nimûne: kurd**ane**, serxweş**ane**, mîr**ane**, dost**ane**, şêr**ane**, mêr**ane**, yek**ane**, tek**ane**, jin**ane**, sextekar**ane**, şah**ane**, merd**ane**

**-ane** (II) : Hokera dem û zemanan çêdike û maneya ″her..., wek her...,″ dide peyva ku ew pê ve têtе girêdanê.
Nimûne: roj**ane**, meh**ane** / heyv**ane**, heft**ane**, sal**ane**,
**-ane** / (III): Bi alîkarîya vê pirtikê hoker yan jî navdêr tên çêkirin.
Nimûne: yek**ane**, per**ane**, tek**ane**

**-anê / -anî**: Bi alîkarîya vê pirtikê navên lîstik û yarîyan tên çêkirin.
Nimûne: top**anê** (tal**anê**), gog**anê** / gog**anî**, kêl**anê** / kêl**anî**, bersing**anê**, çog**anê**, hêl**anê**, ber**anê**

**-anî** (I) : Bi alîkarîya vê paşgirê hem ji navdêr û hem jî ji rengdêran navdêrên abstrakt tên çêkirin.
Nimûne: pir**anî**, mêr**anî**, xort**anî**, kor**anî**, kêm**anî**, keç**anî,** qîz**anî**, jin**anî**

**-anî** (II) : Bi alîkarîya vê paşgirê navên hin xwarinan û hwd tên çêkirin.
Nimûne: bor**anî**, çort**anî**, şîr**anî**, doş**anî**

**-anok** : Bi alîkarîya vê paşgirê navdêr tên çêkirin.
Nimûne: tişt**anok**, çiv**anok**

**-ar** (I): Ji bo çêkirina navê tiştekî bi kar têt.
Nimûne: dest**ar**, guh**ar**

**-ar** (II): Têtе dawîya peyvên ji qurma lêkeran afirî û heyset û rengekî dide gotinê. Heye ku ji kurtbûna paşgira ″-dar″ be.
Nimûne: nivîs**ar**, got**ar**, dîd**ar**, reft**ar**, kuşt**ar**, kird**ar**, mir**ar**

**-ar** (III): Ji bo çêkirina navê kesê ku karekî dike û pê radibe″ têtе bi kar anîn. Heye ku ji kurtbûna paşgira ″-yar″ be.
Nimûne: cot**ar** / cotyar, xew**ar**, mir**ar**, kir**ar**

**-ar** (IV) : Ji rengdêran rengdêreke nû çêdike.
Nimûne: kevn**ar**, jeng**ar** / jing**ar** / zeng**ar** / zing**ar**

**-ar** (VI) : Ji hokeran hokereke nû diafirîne.
Nimûne: pêr**ar**

**-are** (I) : Ji rengdêran rengdêreke nû çêdike.
Nimûne: kevn**are**

**-are** (II) : Ev paşgir bi maneya ″xemilandî, bi xemil″ de ye.
Nimûne: dil**are**

**-asa** : Bi maneya ″wek, mîna, fena, mînanî, şitî, şubhê″ de hokeran çêdike.
Nimûne: dêw**asa**, hût**asa**

**-asî** : Ji rengdêr yan jî ji navekî navdêreke abstrakt çêdike. Heye ku ev pirtik ji guhirîna ″-asa″ ya bi maneya ″wek, mîna, fena, mînanî, şitî, şubhê″ de be.
Nimûne: kêm**asî**, kurt**asî**, kurd**asî**

**-atî /-yatî** : Bi alîkarîya vê paşgirê navdêrên abstrakt tên çêkirin.
Nimûne: kirîv**atî**, êzdî**yatî**, mirov**atî**, xizm**atî**

**-avêj** : Paşgira ji lêkera ″avêtin, havêjtin″ê ye û maneya ″kesê / tiştê ku bi karê avêtinê radibe″ dide peyvê.
Nimûne: top**avêj**, bombe**avêj**, tîr**avêj**, dûr**avêj**, gû**avêj**

**-avî** : Di zaravayê kurmancî de peyva ″avî″ bi tena serê xwe xwedîmane ye, maneyeke taybetî dide. Ev peyv ji bo tiştekî ″avdar, bi av û herikok″ tête gotin. Bo nimûne: sêveke avî, xwarineke avî, erdê avî, avî û dêmî. Lê, herwekî di van çend nimûneyên jêrin de xuya dibe, peyva ″avî″ ji vê maneyê piçekî dûr e. Ew êdî bi rola paş girîyê radibe. Bi alîkarîya vê paşgirê ji navdêrekê hokerek tête çêkirin.
Nimûne: ewr**avî**, çir**avî**, gir**avî**, qir**avî**

**-wî / -yî** : Ji vê paşgirê navê hin nexweşîyan tête çêkirin.
Nimûne: ta**wî**, ba**wî**

**-awer** : Paşgira ji lêkera ″awerden″a farisî û ″ awirden, hawirden″a kurdîya jêrîn e, ango “anîn, hanîn, înan, hînan”. Lê wek paş gir ji maneya bingehîn ya lêkerê bi dûr ketîye, bûye xwedî maneyeke duhemîn, ku ew jî maneya “xwedîbûn, têdehebûn”ê ye.
Nimûne:ceng**awer**, dil**awer**

**-wend :** Xuda**wend**

**-ayetî** : Ev paşgir di van çend dehsalên dawîn de ji zaravayê soranî ketîye kurmancî. Bi alîkarîya vê paşgirê navdêrên abstrakt tên çêkirin.
Nimûne: kurd**ayetî**, bir**ayetî**

**-bar** (I) : Ev paşgir bi maneya ″destûr heye ku bikî, dikare bête kirin, qabilî kirinê″ ye.
Nimûne: guhêr**bar**, guhêz**bar**, bir**bar**, dît**bar** /dî**bar**, nedî**bar**, xwar**bar**

**-bar** (II) : Ev ji lêkera “barîn”ê afirîye û wek paş gir bi maneya ″tijî (bi), dagirtî (bi)″ de ye.
Nimûne: guneh**bar**, tawan**bar**, xem**bar**, çavne**bar**, zîyan**bar**, xeta**bar**

**-bar** (III) : Ev paş gir ji zimanê pehlewî hatîye û bi maneya ″perav, qirax, kenar, rêya avê″ ye.
Nimûne: rû**bar**, co**bar**, zê**bar**

**-bare** : Bi maneya ″car″ê de ye.
Nimûne: du**bare**, sê**bare**

**-baz** (I) : Paşgira ji lêkera ″bazdan″ê, ango ″lîstin″ê ye. Di kurmancîya bo nimûne Berazîyan û ya hêla Ruhayê de, ji bo lîstina bi maneya ″dîl kirin û reqs″ê de, dibêjin ″bazdan″. Ji ber vê yekê, gava ku ev paşgir tête dawîya peyvekê, maneya ″kesê ku bi karê lîstinê radibe″ dide peyvê. Peywendîya vê lêkerê bi ″bazdan″a ku bi maneya ″revîn, xwe
nedan dest, xwe hilavêtin, xwe ceng kirin, hop kirin û hwd″ê tune ye.
Nimûne: fêl**baz**, qumar**baz**, can**baz**, kindir**baz**, ser**baz**, şûr**baz**, rim**baz**, jin**baz**, kiç**baz**, dil**baz**, sêhr**baz**, hîle**baz**, hoqe**baz**, dek**baz**, tewle**baz** (fêlbaz), çene**baz**

**-baz** (II) : Ji lêkera ″bazdan″ê ku peywendîya wê bi ″çûn″ê heye.
Nimûne: der**baz**, , rê**baz**

**-bêj** : Paşgira ji lêkera ″gotin″ê ye û maneya ″kesê / tiştê ku bi karê gotinê radibe″ dide peyvê.
Nimûne: deng**bêj**, stran**bêj**, çîrok**bêj**, henek**bêj**, xweş**bêj** (xoşbêş), gotû**bêj**, gotin**bêj**, Pir**bêj**, ezber**bêj**

**-bend** (I) : Paşgira ji lêkera ″bestin″ê, ango ″girêdan″ê de ye.
Nimûne: baz**bend**, der**bend**, girê**bend**, çiçik**bend**, terkî**bend**, dest**bend**, dol**bend**, rû**bend**

**-bend** (II) : Bi maneya ″girêdan û bestin″ê de kar û pêşeyekê nîşan dide.
Nimûne: sol**bend**, nal**bend**

**-bend** (III) : Bi maneya ″xwe bi tiştekî ve girêdayî dîtin″ê dide.
Nimûne: saz**bend**, heval**bend**

**-ber** (I) : Paşgira ji lêkera ″burden″a farisî û ″birin″a kurdî ye ku maneya ″kesê / tiştê ku bi karê birinê radibe″ dide peyvê.
Nimûne: rê**ber**, dil**ber**, rêve**ber**, emir**ber**, name**ber**, ferman**ber**, pena**ber**, pêxam**ber** / pêxem**ber** / peyam**ber**, ajne**ber**

**-ber** (II) : Bi maneya ″hebûn″ê de ye.
Nimûne: sî**ber**, ruh**ber**

**-best** : Paşgira ji lêkera ″bestin″ê, ango ″girêdan″ê ye ku maneya ″kesê / tiştê ku bi karê girêdanê radibe dide peyvê.
Nimûne:dar**best**, ser**best**, ben**best**, hel**best**

**-bir** : Paşgira ji lêkera ″birin″ê ye û maneya ″kesê/tiştê ku bi karê birinê radibe″ dide peyvê.
Nimûne: bar**bir**, avrû**bir**, zor**bir**, bîr**bir**

**-birr** : Paşgira ji lêkera ″birrîn″ê ye û maneya ″kesê / tiştê ku bi karê birrînê radibe″ dide peyvê.
Nimûne: dar**birr**, rê**birr**, caw**birr**, çol**birr**, av**birr**, ser**birr**, nav**birr**, kurte**birr**, qut**birr**, dest**birr**, dew**birr** (yê ku pezê xwe liserhev difroşe), ta**birr**, çil**birr** (yê ku çilê zarokan dibire), şikêl**birr** (nexweşîya zarokan e û heta dibin 3-4 salî nikarin bimeşin. Yê ku şikêlê dibirre), mehr**birr**, co**birr**

**-bihêrk / -buhêrk /-bêrk** : Paşgira ji lêkera ″bihartin / buhartin″ê ye û maneya ″tiştê ku bi karê bihartinê radibe″ dide peyvê.
Nimûne: şev**bihêrk**, rê**buhêrk**, dil**buhêrk**

**-bîn** : Paşgira ji lêkera ″dîtin″ê ye û maneya ″kesê / tiştê ku bi karê dîtinê radibe″ dide peyvê.
Nimûne: dûr**bîn** /dûre**bîn**, bed**bîn**, hûr**bîn**, xweş**bîn**, ne**bîn**, geş**bîn**, rast**bîn**

**-ç** : Paşgira ji bo piçûkkirinê ye û kurtbûyîya ″çe″yê ye.
Nimûne: rê**ç**, ri**ç** (rîçal, reh û rîçal)

**-çe** : Paşgira ji bo piçûkkirinê ye.
Nimûne: alû**çe**, bax**çe**, par**çe**, box**çe**, nîv**çe** (nîv**cî**, nîv**co**), keman**çe**, xalî**çe**, nal**çe**

**-çik** : Paşgira ji bo piçûkkirinê ye. Ji du pirtikên piçûkkirinê, ji ″ç″ û ″ik″ê pêk hatîye.
Nimûne: rû**çik**, rê**çik**

**-çin** : Paşgira ji lêkera ″çinîn″ê ye û maneya ″kesê / tiştê ku bi karê çinînê radibe″ dide peyvê.

Nimûne: mazî**çin**, gul**çin**, pembû**çin**, titûn**çin**

**-çing**: Paş girek e, ku ji pirtika "çin"ya ya ji lêkera "çinîn"ê û pirtika "g"yê, ku ji paş gira "ing"a ji bo piçûkkirinê ye, pêk hatîye. Bi vê paş girê navên alavan tête çêkirin.
Nimûne: mû**çing**

**-çîn** : Paşgira ji lêkera "çandin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê çandinê radibe" dide peyvê.
Nimûne: derew**çîn**, gul**çîn**

**-çolkî** : Ji rengdêrekê hokerê diafirîne.
Nimûne: spî**çolkî**

**-da** : Paşgira ji lêkera "dan / dayîn"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê dayînê radibe" dide peyvê.
Nimûne: nan**da** / nan**de**, xwedê**da**

**-dan** (I) : Derdana tiştekî nîşan dide.
Nimûne: der**dan**, şima**dan**, mûm**dan**, agir**dan**, çay**dan**, gul**dan**, kil**dan**,

**-dank** : Derdaneke piçûk ya tiştekî nîşan dide. Paş gireke hevedudanî ye û ji peyva "dan" û pirtika piçûkkirinê ya "k"yê pêk hatîye.
Nimûne: agir**dank**, av**dank**, avil**dank**, çay**dank**, der**dank**, derzî**dank**, gulçî**dank**, kevçî**dank**, kil**dank**, mîz**dank**, mûm**dank**, pif**dank**, piz**dank**, şekir**dank**, şima**dank**, xwê**dank**, xwelî**dank**

**-dar /-(e)dar** (I) : Paşgira ji lêkera "daştin"a farisî ye ku di hin zaravayên kurdî de "darîn" e û hevmaneya lêkera "hebûn"ê ye. Paş gira "dar" bi maneya "heye / heyî"yê de ye.
Nimûne: agah**dar**, aheng**dar**, av**dar**, bêhn**dar**, birîn**dar**, çek**dar**, cin**dar**, dên**dar**, derd**edar**, deyn**dar**, dikan**dar**, dîn**dar**, evîn**dar**, ferman**dar**, kir**dar**, kirê**dar**, mal**dar**, mêvan**dar**, nan**dar**, ne**dar**, paye**dar**, pişte**dar** / piştî**dar**, remil**dar**, ser**dar**, sermaye**dar**, xwîn**dar**, zor**dar**,

**-dar** (II) : Di zaravayê kurmancî de bi tenê di peyva"guhdar" de, ku bi awayekî ş aş , paş gira "dar" di maneya "dan / dayîn"ê de ye. Rastîya vê, herwekî di klasîkên me de jî derbas dibe, "dêr" e û ji lêkera "dêrîn /dêran"ê ye. Di klasîkan nivîskî de ev wek "guh bidêre" ye û peyva "guhdar" jî di edebîyata devkî de "guhdêr" e.
Nimûne: guh**dar** / guhdêr

**-de** : Paşgira ji lêkera "dan / dayîn"ê ye û maneya "dayîn"ê dide peyvê.
Nimûne: nan**de** (nanda, nandar), dîyar**de**, qûn**de**

**-dek** : Navên alav û hacetekê nîşan dide.
Nimûne: ba**dek**, nîşan**dek**

**-der /-eder** (I) : Ev paşgir maneya "derve" dide peyvê.
Nimûne: şev**der** / şev**eder**, çav**der** (çavli**der**), da**der**

**-der** (II) : Paşgira ji lêkera "dan / dayîn"ê ye û maneya "dayîn"ê dide peyvê.
Nimûne: ferman**der**

**-derz** : Paşgira ji lêkera "dirûn, dirûtin"ê ye û maneya "kesê ku bi karê dirûtinê radibe" dide peyvê. Peyva "derzî" û "terzî" jî her ji vê peyvê hatine.
Nimûne: qûn**derz** (cureyek kêlê /dirûtinê ye), du**derz**

**-dêr** : Paşgira ji lêkera "dêran / dêrîn"ê ye û maneya dayînê dide peyvê. Li „**-dar** (II)"an binihêre.
Nimûne: av**dêr**, guh**dêr**, çav**dêr**, kar**dêr**, kirê**dêr**

**-dêrî / -dorî** : Paşgireke hevedudanî ye û ji "dêr"a ji lêkera "dêran / dêrîn"ê, ku bi maneya "dan / dayîn"ê ye, û ji pirtika "î"yê pêk hatîye. Navdêreken abstrakt diafirîne.
Nimûne: ga**dêrî** / ga**dorî**, şev**dêrî** / şev**dorî**

**-dirû** : Paşgira ji lêkera "dirûn, dirûtin"ê ye û maneya "kesê ku bi karê dirûtinê radibe" dide peyvê.
Nimûne: sol**dirû**, kurtan**dirû**, cil**dirû** (kinc**dirû**)

**-dîn** : Bi maneya "cih, sitar"ê de ye.
Nimûne: ka**dîn**, gîya**dîn**

**-doş** : Paşgira ji lêkera "dotin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê dotinê radibe" dide peyvê.
Nimûne: çêlek**doş**, pez**doş**, ker**doş**

**-doz / -diz** (I): Paşgira ji lêkera "dirûn, dirûtin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê dirûtinê radibe" dide peyvê.
Nimûne: pîne**doz** / pîne**diz**, çewal**doz** /çewal**diz**,

**-doz** (II) : Paşgira ji lêkera "dozîn, doz kirin"ê ye û maneya "kesê ku bi karê peydakirin û bidestxistinê radibe" dide peyvê. Di zaravayê soranî de ev lêker bi tenê bi maneya "peydakirin"ê de ye û gelekî berfirehtir tête bi kar anîn. Lê di kurmancî de, "doz kirin" bi maneya "da'we kirin, xwastin"ê de ye. Lê, bi maneya "peydakirin"ê de, bi tenê di kurmancîya li hêla Depê / Xarpêtê de tête bi kar anîn.
Nimûne: nan**doz**, war**doz**

**-e** (I) : Têtê dawîya peyvên ji qurma lêkeran afirî û heyset û rengekî dide gotinê.
Nimûne: bijart**e**, bijar**e**, bêj**e**, jimar**e**, bend**e**, kêş**e**, best**e**, hinar**e**, şikest**e**, kird**e**, xwend**e**, mal**e**, awart**e**

**-e** (II) : Têtê dawîya peyvên ku rengan nîşan dide û maneya "rengê ku ber bi wî rengî diçe, rengê ku dişibe wî rengî" dide peyvê.
Nimûne: sor**e**, kesk**e**, zer**e**, gewr**e**

**-e** (III) : Têtê dawîya hin peyvên ku peywendîya wan di gel zeman heye yan jî zeman nîşan didin û maneya "bi wê demê ve girêdayî, di wan wextan de" dide peyvê.
Nimûne: bihar**e**, êvar**e**, payîz**e**, ser**e**, navser**e**, heft**e**, çil**e** (çel**e**)

**-e** (IV) : Ji peyvên navdêr yan jî rengdêr navdêreke nû û xwedan maneyeke nû û taybetî diafirîne.
Nimûne: dest**e**, dermal**e**, çilmêr**e**, şewat**e**, sebz**e**, kor**e**, nerm**e**

**-ek** (I) : Gelek caran navên tiştan, nemaze navên hacet û alavan diafirîne.
Nimûne: dest**ek**, bad**ek**, rast**ek**, pişt**ek**, birr**ek**, xiz**ek**, nîv**ek**, şeş**ek**, heşt**ek**, heft**ek**, fitl**ek**, xwast**ek**, kot**ek**, xur**ek** (xwar**ek** / xwer**ek**)

**-ek** (II): Navên ku xuy û xeyseteke taybetî dide mirovan diafirîne.
Nimûne: virr**ek**, ser**ek**, kul**ek**, sil**ek**, çil**ek**, zirt**ek**, fis**ek**, tirr**ek**, tirs**ek**, mîr**ek**, pîr**ek**, wêr**ek**, newêr**ek**, fen**ek**, pars**ek**, kul**ek**

**-el** : Ev paşgir maneya "bi rengê" dide peyvê û wê dike xwedan xeyseta navdayî û jê rengdêrekê diafirîne.
Nimûne: çep**el**, kom**el**

KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE
Supplément du Bulletin de liaison et d'information
N° C.P. : 65913 A.S.


106, rue La Fayette, 75010 Paris - France, Tel. : 00 33 (0)1 48 24 64 64
*www.fikp.org*
*Directeur de la publication :* **Reşo ZÎLAN,** *Réalisation :* **S. ILITCH & M. HASSAN**